
Tahir Mehmûdî endamê Komîteya Nawendî a PDKÎ

## Peyama Komîsyona Civakî a PDKÎ bi boneya 10'ê Xakelêweyê roja şehîdên Kurdistanê

»»»» R:3



*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî
www.agirimedia.org Hejmar (275) 03-04-2016 Buha (500) Tûmen

## Şehîdên Kurdistanê hatin bibîranîn



**Bi boneya 10'ê Xakelêwê roja şehîdên Kurdistanê, sekreterê giştî ê PDKÎ Mistefa Hicrî û endamên rêberayetiya PDKÎ û kadr û pêşmerge û malbatên wan, serdana goristana şehîdên PDKÎ kirin.**

Li gora nûçeya ku gihîştiye malpera Kurdistanmedia, roja Sêşemiyê 10'ê Xakelêwe roja şehîdên Kurdistanê, rêûresma rêzgirtina ji xebat û tekoşîna şehîdên riya azadiya Kurd û Kurdistanê, bi birêvebirina rêjeya leşkerî dest pê kir.
Piştî vê ku desteyek ji pêşmergeyan bi rêjeya leşkerî digel beşdarên rêûresmê ber bi goristana şehîdan ve meşiyan, û gihîştin wir, du sirûdên taybet bi vê rojê, bi navên "Ey Şehîdan" û sirûda "Merêjin bom firmêskî xem" ji aliyê du komên pêşmergeyan ve hatin xwendin.
Di beşeke din de Mistefa Hicrî sekreterê giştî ê PDKÎ digel Silêman Senayî ku bavê wî şehîdê PDKÎ ye,qevdeke gulan li ser qebrê şehîdekî PDKÎ danîn. Piştre jî hemû beşdarên rêûresmê ber bi hola pêşangeha şehîdan ve meşiyan, û ew pêşangeh ji aliyê Mistefa Hicrî sekreterê giştî û Ayişe Dirûdger xûşka du şehîdan ve hate vekirin, û beşdaran bi serdankirina vê pêşangehê rêz û hurmet ji xebat û tekoşîna wan şehîdan girtin, û cardin emegdariya xwe bo hemû şehîdên riya azadiya Kurd û Kurdistanê ducarî kirin.
Di beşeke din ya vê rê û resmê de, ku di hola giştî ya rêûresmên PDKÎ de bi rê ve çû, sirûda neteweyî ya "Ey Reqîb" hate xwendin û deqeyekê bêdengî bona rêzgirtina ji riha pak ya hemû şehîdên riya rizgariya Kurdistanê hate ragehandin.
Piştre peyama Komîsyona Civakî a PDKÎ ji aliyê Tahir Mehmûdî endamê Komîteya Nawendî a PDKÎ ve hate pêşkêşkirin.
Piştre sirûdek li jêr navê "Xwîna Xakelêwe"ji aliyê koma muzîkê a PDKÎ ve pêşkêşî beşdaran hate kirin.
Piştre peyama hevbeş ya Yekîtiyên Jinan, Ciwanan û Xwendekarên Demokrat ên Kurdistana Îranê, ji aliyê Selam Îsma'îlpûr endamê heyeta birêveberiya Yekîtiya Xwendekaran ve hate xwendin.
Piştre pexşanek li jêr navê "Xorî Xakelêwe" ji aliyê hevalê pêşmerge Cemal Fethî û pexşanek din jî ji aliyê "Ebdulrehman Yusifî" ve li jêr navê "Sêdare û jiyan" hatin pêşkêşkirin.
Di dawiyê de sirûdek ji aliyê koma muzîkê ya PDKÎ ve hate pêşkêşkirin. Herwisa bi boneya 10'ê Xakelêwe roja Şehîdên Kurdistanê çendîn aliyan û partiyên siyasî û kesayetiyan peyamên xwe pêşkêşî rêûresman kiribûn ku weha bûn:

Peyama Şêx Çapok fermandarê bajarê Koyê
Melbenda 14'ê ya Koyê, YNK
Partiya Demokrat a Kurdistanê, navçeya Koyê
Yekgirtûya Îslamî a Kurdistanê, Koye
Hizba Şiyu'î a Kurdistanê, komîteya Koyê
Tevgera Goran, Koye
Yekîtiya Zanayên Îslamî taya Teq Teqê

## Pêşewa Qazî Mihemed jiyana xwe gorî ax û gelê xwe kir



»»»» R:6

## Hesen Şerefî: Manşeta "Keyhanê Lenden", digel axivtinên min yek nagrin





**Hesen Şerefî cihgirê sekreterê giştî ê PDKÎ di gotûbêja digel Kurdistanmedia, ragehand ku manşeta "Keyhanê Lenden" malpera înternî li Londonê digel hevpeyvîna wî dijayetî heye, û yek nagrin.**

Hesen Şerefî di hevpeyvîna digel Bîjen Ferhûdî de, ku ji bo Dengê Amerîka ew hevpeyvîn encam daye, û ew hevpeyvîn di "Keyhanê Lenden" de belav bûye, ragehandiye ku axivtinên wî di çarçoveya siyasetên nû yên PDKÎ de ne, û şirove ye li ser axivtinên sekreterê giştî ê PDKÎ, û ew hevpeyvîn bi tewahî di biyavê piştrastkirina wan axivtinan de ye, lê Keyhanê Lenden manşeteke li gora dilê xwe daniye, ku li dijî axivtinên wî ne, û xwîner û bîner dikare bi awayekî cuda vê hevpeyvînê têbigihîje, û şirove bike.

## Komîsyona Ragehandinê ya PDKÎ: Axivtinên Xalid Ezîzî hilgirê çendîn peyamên nigatîv in




Komîsyona Ragehandinê ya PDKÎ rohnkirinek li ser axivtinên Xalid Ezîzî belav kir, û di vê rohnkirinê de bal kişande ser vê ku ragehandina peyama newrozî ya rêzdar Mistefa Hicrî sekreterê giştî ê PDKÎ di demekê de ku digel pêşwaziya berbiçav ya gellek ji çalakên siyasî û texên cur bi cur ên nav civaka Kurdistana Rojhilat berbirû bibû, lê digel dijkiryara kak Xalid Ezîzî jî berbirû bû, ku em hêvî dikin ew yek boçûna hizba wî nebe.

Piştre Komîsyona Ragehandinê ya PDKÎ di çend xalan de diselimîne ku ew dijkiryara navbirî hilgirê çendîn peyamên nerênî ne. Deqa vê rohnkirinê di malpera www.Kurdistanmedia.com de hatiye weşandin, ku xwînerên rojnameya Agirî dikarin di vê malperê de, berfirehiya vê rohnkirinê bibînin û bixwînin.



## Şahî û şoreş

»»»» R:2




## Tu nikarî gelê Kurd teslîm bikî

»»»» R:5



# Sergotar

## Şahî û şoreş

Kerîm Perwîzî



Xebata neteweyeke belengaz û stemlêkirî, tenê biyavekê bi xwe ve nagire, û hekî em nebêjin ku hemû, lê beşeke zaf ji biyavên jiyana civakî û siyasî û aboriya xelkê bi xwe ve digre, û herwekî "Karil Marks" gotiye, neteweyek ku di bin stemê de dijî, hemû şiyana xwe ji bo rizgarbûna ji destê jêrdestî û stemê dadinê, û xebat bo rizgariyê, hemû aliyên jiyan û dîroka vê neteweyê bi xwe ve digre.

Eva jî nahê vê wateyê ku ew neteweya, her bixwe û bi îrade û hezkirina xwe, hemû wan biyavên jiyanê, tevlî xebata ji bo rizgariyê dike, bi wateyeke din çi neteweyek ji vê hez nake, ku hemû hêz û enirjî û bîrkirina wê ji bo şer (îca siyasî be, yan leşkerî yan…hwd) danê, belkû hikûmet û deshilata stemkar û dagîrkar e, ku ji tirsê xwe û di pêxema têrkirina hesta pawanxwaziyê de, hêdî hêdî hemû valahî û kunceke jiyana asayî ya xelkê belengaz û di bin deshilatê de dagîr dike, û ji tirsê vê ku valahiyek bi cih nehêlabe, ku ji wir ve dijminên wê rejîmê nifûzê tê bikin, hewl dide ku tarîtî û stemkariyê bi ser hemû kunceke civakê de bisepîne.

Ji vê dîtingehê ve, û herwisa ji dîtingeha îdeolojiya mergdost a Komara wilayeta sêdarê ve ye, ku em dibînin ew rejîm gellek ji merg û şîn û tazî û vegeşandina kultura tazîdariyê hez dike, û digel şahî û xweşiya xelkê neteba ye, û dijmin e, û hemû cure şahiyeke xelkê wekî dijberiya digel xwe dihesibîne.

Dema ku bas tê ser neteweya Kurd, li ber taybetmendiyên neteweyî û kulturî yên wê, berdewam kerb û bêzariya xwe ji rejîmên stemkar û dagîrkar hem bi rezm, û hem bi şahî û govend û dîlanê eşkere kirine, lewra di dîroka xebata neteweya Kurd de, di hemû beşan de, em dibînin ku govenda Kurdî bûye remza yekgirtinê, û berbûne canê dijmin, û di serkevtinan de bi reşbelekan çavên dijmin kore kirine.

Di newroza îsal de neteweya Kurd di Kurdistana Rojhilat de, hêviya vejiyan û vegeşîn û gurrtirbûna xebatê, li şahî û govenda berfireh û pirr hejmar de nîşan da, û di hemû cihekî vê para nîştimana Kurdan de, şoreş tevlî şahî û govenda watedar ya neteweyî kirin. Buhar û sala nû, û rojên seyran û xweşî û çûna derve a xelkê kurdistana Rojhilat, tejî bû ji şahî û xweşiya şoreşekê, ku di rê de ye.

# Şandeke Hizba Demokrat di 82'mîn salvegera avakirina Hizba "Şiyû'î" de pişikdarî kir



**Heyeteke Hizba Demokrata Kurdistanê bi boneya 82'mîn salvegera avakirina hizba "Şiyû'î" ya Kurdistanê, serdana Mekteba Siyasî ya vê partiyê kir, û ji aliyê sekreterê giştî yê vê partiyê ve, hatin pêşwazîkirin.**

Li gorî nûçeya gehiştî destê malpera "Kurdistanmedia"yê, roja Pêncşemî berwarê 31'ê Adarê beranberî 12'ê Xakelêweya sala 1395'an a Rojî, heyetekî Hizba Demokrat bi serperestiya Sidîq Derwîşê endamê Komîteya Nawendî û berpirsê Nawenda 3'ê ya Kurdistanê, serdana Mekteba Siyasî ya Hizba Şiyû'î ya Kurdistanê kir.

Di vê serdanê de heyeta Hizba Demokrat, pîrozbahiya yad û bîra 82'mîn salvegera avakirina Hizba Şiyû'î, pêşkêşî "Kemal Şakir" sekreterê gişî û endamên Mekteba Siyasî ya vê partiyê kirin.
Li hember de jî, sekreterê giştî yê Hizba Şiyû'î "Kemal Şakir", kêfxweşiya xwe li hemberî serdana heyeta Hizba Demkorat de, anî ziman.

# Endamekî PDKÎ li Başûra Kurdistanê de koça dawiyê kir



**"Ehmed Mamend" naskirî bi "Xazî" endamê dilsoj ê PDKÎ çû ber rehmetê.**

Li gora nûçeya ku gihaye malpera Kurdistanmedia, Ehmed Mamend naskirî bi Xazî kurê Ezîz xelkê "Dizê"ya Urmiyê akinciyê Herêma Kurdistana Başûr roja Duşemî 21'ê Adarê koça dawiyê kir.

Navbirî ji sala 2003'an ve, endamê PDKÎ bû, û erkên hizbî bi rê ve dibirin.

Ew kesekî tekoşer û di nava endam û dostên hizbê de wekî kesekî welatparêz û dilsoj hatibû naskirin. Termê navbirî di goristana şehîdan a Nawenda Sê ya PDKÎ de, di nav xem û kovana hevalên wî de bi axê hate spartin.
PDKÎ sersaxiyê dibêje malbat û kes û karên wî, û xwe di xema wan de bi şirîk û hevpar dizane.

# Endameka PDKÎ li bajarê Şinoyê de koça dawiyê kir



**Zibêde Xizrî endama PDKÎ, û akinciyê şinoyê, bi sedema nexweşiyê koça dawiyê kir.**

Li gora nûçeya ku gihaye malpera Kurdistanmedia, roja 17'ê Adarê xûşka dilsoj û têkoşer "Zibêde Xizrî" endama PDKÎ bi sedema nexweşiyê xatirê xwe yê yekcarî ji hizb û gelê xwe xwest.

Navbirî ji sala 2005'an ve pêwendî digel PDKÎ hebû, û wekî endameke dilsoj û çalak di navxwe ya welat de kar û erkên hizbî bi rê ve dibirin.

PDKÎ sersaxiyê dibêje malbat û kes û karên navbirî, û xwe di xem û nerehetiya wan de bi şirîk û hevpar dizane.





# Peyama Komîsyona Civakî a PDKÎ bi boneya 10’ê Xakelêweyê roja şehîdên Kurdistanê

Komîsyona Civakî a PDKÎ bi boneya 10’ê Xakelêweyê roja şehîdên Kurdistanê peyamek belav kir.

Deqa peyamê weha ye:

**Hevwelatiyên rêzdar!**
**Malbatên serfiraz ên şehîdan!**
**Kadr û pêşmergeyên hêja!**
**Mêhvanên rêzdar!**

Îro 10’ê Xakelêweyê roja serîhildana jana vê birînê ye ku di vê rojê de, û di sala 1326’an de (31’ê Adara sala 1947’an), bi bidarvekirina Pêşewa Qazî Mihemed yekem serkomarê Kurd û hevalên wî, kete ser laşê neteweya Kurd bi giştî û Kurd li Kurdistana Rojhilat bi taybetî. Birînek ku piştî debazbûna 69 salan niha jî her kûr û bijan e, û wekî karesatekê di bergirî ji mafê rewa di her rewşekê de, û mana li ser qewl û peymanê lê fêr bin. Bo dijminên Kurd û dijî mafê mirov û dijî dadperwerî û azadî jî, bi nav dadgeha Pêşewa pirr bû ji pêdagirî li ser heq û rastî û azadî û aştî û berxwedana di hemberî stem û nedadperwerî û serberedayî, û dadgeha bêdadiyê biribû jêr pirsyar, û lêpêçîn ji deshilateke dagîrkar dikir.

**Malbatên serbilinde şehîdan!**

Em îro 69 sal piştî vê karesata dilêş û di roja şehîdbûna Pêşewayê Kurdan de, yad û bîra wan hemû şehîdên serbilind ên xwe bi bîr tînin. Mixabin gelê Kurd di Rojhilata Navîn de, li jêr stema deshilatdar û neteweya fermanrewa ya wisa de dijî, ku her di bîra “pîrozkirin” a kesayetî û zalkirin û sepandina “erk” bi ser “maf” de ye, ew yek ew destewaje ne ku Pêşewa bi bextkirina canê xwe haşa jê kirin, jiber ku di cîhanbîniya Pêşewa de mirovbûn û behayên mirovî girîng bûn.

Di

> *Komîsyona Civakî: Bi tevlîbûna refên hizba Pêşewa, pêşwaziyê ji daxwaza hizba xwe bikin, û dilê dostan şa, û dijmin jî wekî hertim rezîl û riswa bikin.*

pêvajoya tevgera Kurd û mafxwaziya wê de tê hesibandin.
Paş jinavbirina Komara Kurdistanê ji aliyê Mihemedriza Şah û piştevanên wî ve, di heyama girtin heya roja bidarvekirina pêşewayê mezin de, gelê Kurd rojên pirr ji nîgeranî û çavnihêrî derbaz kirin, ku gelo çarenivîsa Pêşewayê wan wê çi jê bihêt? Reftara dewleta Îranê di vê derheqê de wê çawa be? Diyar e ku xwezaya deshilatên serberedayî berdewam wisa bûye ku ji riya serkut, hêza zor û bidarvekirinê ve, deshilata xwe bisepînin. Li gora derbazbûyiya deshilatdarên Tehranê ku heya wê demê li hemberî rêberên Kurd de hebûne, herwekî ku digel serkirde û qehremanê neteweyî yê Kurd Simayîl axa (simkoyê Şikak) kirin, dihate pêşbînîkirin ku çi biqewime? Lê bo Pêşewa bendîxane jî sengereke din bû, ku rêvîngên pêşerojê ên wî mamostayê mezin dersa xweragirî, serdema Pêşewa û heya niha jî di serdem reş a Komara Îslamiya Îranê de kêşeyek mezin ya deshilatdarên serberedayî ên Tehranê ew bûye ku wekî Sedsalên Navîn bo wan girîng e ku fermanrewa bin, ne eva ku şêweya fermanrewayiyê çawa be, û xelk û tak û mafên wan çiqas parastî bin. Eva kêşeya bingehîn ya felsefeya siyasî ya PDKÎ digel deshilatdarên serberedayî ên zal bi ser Îranê de, ji serdema Pêşewa Qazî ve heya îro ye.

**Hevalên rêzdra, rêvîngên riya Pêşewayê nemir!**

69 sal berî niha bingeha deshilatdariyê li Kurdistanê û ji riya hizbeke siyasî û bi serokatiya rêberekî jêhatî wekî Pêşewa Qazî, li ser rewayiya yasayê û hêjatiya kesayetî û li ser daxwaza xelkê hate avakirin. Lewra rewta deshilata kevneperestane ya Kurd jî guherîn bi ser de hat, û ji serkirdayetiya serok êl û derebeg ve hate guherîn bo serkirdayetiya hizbeke siyasî wekî PDKÎ bi bernameyeke pêşkevtinxwazane ve.
Li jêr rêberiya zanayekî yasayê, zimanzanekî rewşenbîr û dadwerekî dadperwer wekî Pêşewa, jin bûne hevparê xebat û tekoşînê, û pê danîn nav qada çalakiyên siyasî û civakî, û ciwan bona pêgehiştin û xizmeta bi gelê xwe di pêşerojê de, ji bo derve hatin şandin bo xwendinê, û bi coşeke taybetî ve di bin alaya Kurdistanê de, û bi sirûda niştimanî ya “Ey Reqîb” xwendingeh bi Kurdî hatin vekirin, û zarokên Kurd bi zimanê Kurdî dest bi xwendinê kirin, û helbest û edebiyat û rojnamgeriya Kurdî bêhneke nû vedan, û di pêxema serbestiyê de, bi azadiyê şa bûn, eva ye cudahiya şêweya deshilatdariya me û wan.
Serbarê hemû wan deskevtan di dema serkomariyê de, Pêşewa Qazî Mihemed bona bergirî ji azadî û mafê rewa yê xwe û gelê xwe, bo azadî û serbestiyê di bendîxaneyên rejîma Şah de em fêr kirin ku xelk û netewe kok û bingeh in, ne serkirde û kesayetî. Rêberên berpirs û şoreşger xwe dikin qurbaniyê serbestî û bextewariya gelê xwe, ne eva ku xelkê bikin qurbaniyê berjewendiyên taybetî û takekesî ên xwe. Eva ye mekteb û rêbaza PDKÎ.

**Hevalên rêzdar!**

Piştî herifîna Komara Kurdistanê di heyama çar meh û 13 rojan de, 22 serdarên Kurd digel pêşewayê xwe çûne ber dara îdamê, û canê xwe di pêxema azadî û serbestiya gelê Kurd de gorî kirin. Ew jî 11 serdarên feyzullah begî, çar efserên Komara Kurdistanê li Mehabadê, fermandeyê hêza pêşmerge li Bokanê, û çar efserên Kurd ên Başûra Kurdistanê bûn, ku di bexdayê de bi destên deshilatdarên dîktator ên her du welatan hatin bidarvekirin.

**Hevwelatiyên rêzdar!**

Dijminên Kurd bi bidarvekirina Pêşewa û serdarên Kurd, bi xeyala xwe xwestin ku neteweya me ji mafxwaziya xwe paşve vegerînin, û serî ji bo zordariya dagîrkeran netewînin, lê gelê Kurd hîn bûye ku çawa bi nirxeke giran û bi tabkirina (tehemula) êş û janên mezin, serî ji zordaran re netewînin, û herwekî rêberê zana û endazyarê vejiyandina şoreşa Kurd û



## Tahir Mehmûdî endamê Komîteya Nawendî û berpirsê Komîsyona Civakî a PDKÎ











vala derxistina xewna deshilatdarên Tehranê, şehîd Dr. Qasimlo kerem kiriye: “Karwanê şehîdên me dirêj e, û renge ji vê hindê jî dirêjtir be… neteweyek ku azadiyê bixwazewe, dibe ku nirxa vê azadiyê jî bide”, karwanê şehîdên me jî dirêjtir be.
Niha em dibînin ku serbarê şehîdbûna rêberên wekî Qazî û Qasimlo û Şerefkendî, û bi hezaran fermander û kadr û pêşmergeyan, gelê Kurd herwisa li ser piyan e, û xebata demokrasîxwaziya gelê me di Rojhilat de her berdewam e. xebatkarên Kurd li jêr deshilata reş ya axûndan de, serbarê azar û işkence û gullebarankirin û bidarvekirinan, di rêbaza Pêşewa de hîn bûne ku serî netewînin, û bi şêweyên cur bi cur û di asteke berfireh û bi hişyariyeke baş ve ji bo azadiyê xebatê bikin.

**Ciwanên xabatkar ên rêbaza Pêşewayê mezin!**

Di newroza îsal de, rêzdar sekreterê giştî ê partiya me, peyameke girîng belav kir, û daxwaza tevlîbûna refên PDKÎ û domandina rêbaza Pêşewa û rêberên din ê şehîd ji xortên neteweya Kurd kir. Ew daxwaz bi berhevdaneke hûr û nirxandina zirûfa herêmê û welatê me hatiye kirin. Lewra ji bo dildaniya malbatên serbilind ên şehîdan, bi tevlîbûna refên partiya Pêşewa, pêşwaziyê ji daxwaza partiya xwe bikin, û dilê dostan şa bikin, û dijmin jî wekî hertim perîşan û zelûl bikin. Herwek ku dibînin niha pêşmerge di Rojhilata Navîn de, û di asta cîhanî de jî, bûye remza bergirî ji azadî û mafên mirovî û li dijî bîra teng û tarî û terorê sekinye. Me jî ew çavnihêriya ji xelkê têkoşer ê Kurdistanê heye, û hêz û şiyana bajaran û ya çiya bikin yek, û bi hev re berbin canê rejîma serberedayî.

Ku wisa bû, digel amajekirina bi wan rastiyên serve, qonaxeke nû û çarenûssaz li pêşiya me ye. Xelkê Kurdistanê bi çavê hêvî ve li me dinêrin, û vê rewşê hewcehiya wê bi mandîbûna zêdetir û hewl û tekoşîna zêdetir heye.
Ya ku Komara Îslamiya Îranê û sercem dîktator jê ditirsin, yekgirtina civatên xelkê Kurdistanê ye. Kiryarên ne hejî, û cînayetên nêzîk bi çar dehikan ên rejîmê, guman bo tu kesî nehêştiye ku heya ew rejîma li ser kar bimîne, dev ji serkutê bernade, û diyariya rejîmê tenê malwêraniya zêdetir e bo xelkê Îranê bi giştî û Kurdistanê bi taybetî.
Ew guhertinên ku di Rojhilata Navîn de pêk hatine û di rê de ne, vê yekê îsbat dikin, ku rejîm pê kêfxweş nine, û serdema şanosaziyan, û hilbijartinên saxte ên rejîmê hêdî hêdî bi dawî hatine.
Heya vê cihî jî ku pêwendiya wê bi PDKÎ ve heye, tevî nûkirina peymanê digel riha pak ya şehîdan, em we xatircem dikin, ku PDKÎ xebat ji bo azadiyê û dabînkirina mafê neteweyî bo demekê jî nasekinîne, û bi hewl û tekoşîna berdewam, hêviya şehîdên nemir bi dest dixe.

Hezar silav li riha pak ya Pêşewa û hevalên wî û hemû şehîdên serdema Komarê û tewahiya şehîdên ku di parçeyeke din a kurdistanê de li pêxema bergirî ji Kurdistana Rojhilat, di her kêliyeke zemanî de, canê xwe gorî kirin.

**Neman bo rejîma terorîst û terorîstperwer a Komara Îslamiya Îranê**

**PDKÎ**
**Komîsyona Civakî**
**10.01.1395**

## Rêûresma roja Şehîdan li Nawenda 3’ê ya Kurdistanê de bi rê ve çû



**Rêûresma rêzgirtina ji roja 10’ê Xakelêwe, roja şehîdên Kurdistanê li Nawenda 3’ê ya Kurdistanê de bi rê ve çû.**

Ew rêûresm di hola rêûresmên PDKÎ li kempa Cêjnekanê de, bi beşdariya pêşmergeyan, endamên PDKÎ û çendîn mêhvanan li Bakur û Rojavaya Kurdistanê bi xwendina sirûda neteweyî ya “Ey Reqîb” dest pê kir.

Piştre Kerîm Qelatî endamê Nawenda 3, û berpirsê beşa civakî, peyama Nawenda 3 bi boneya roja şehîdan xwend.

Piştre koma hunerî ya PDKÎ çendîn parçe muzîk bi vê boneyê ve pêşkêşî beşdaran kirin.

Di beşeke din ya vê rêûresmê de beşdaran serdana mezarê şehîdan kirin, û ji aliyê Sidîq Derwêşî endamê Komîteya Nawendî û berpirsê Nawenda 3’ê, û xatû Amîne Rehmanî hevjîna şehîd Silêman Sabirî tacegulek li ser mizarê şehîd Resûl Mihemedzade hate danîn.











# Tu nikarî gelê Kurd teslîm bikî






Îbrahîm Qasimîzad

Hekî hûn bixwazin ku dewleta Tirk nas bikin, kûr û dûr neçin, hovîtî û bêexlaqiya wê ya li hember gelê Kurd di Cizîra Botan de binêrin. Xala himberî hovîtiya dewleta Tirk, berxwedana gelê Kurd e. Di gel hemû wêranî, şewitandin, girtin û kuştinan, gelê berxwedêr yê Cizîrê teslîm nebû û serî li ber dewleta dagîrker a Tirk netevand. Cizîr wêran bû, lê her weke Kobanê li berxwe da û wê bi ser bikeve. Lewra Kurd weke çawan bi Kobanê serbilind in, bi Cizîrê jî serbilind û şanaz in.

Dîktatoriya Erdogan-AKP bi fermî û eşkere ragehandiye ku dixwaze Sûr, Silopî, Cizîr û hinek bajarên din yên Kurdan ku dîroka hin ji wan bajaran vedigere ser pitir ji heft hezar salan bi ser berxwedêran de kavil bike. Wate ya wê gefê ewe ku dewlet dixwaze xelkê bajaran aware bike û ji mal û halê wan der bixe. Bi wê riyê sîstema deselatdar wê bikaribe bajararan bi demogirafiyek nû û mirovên nû li gor berjevendiyên xwe ava bike. Ji ber ku dema Kurd koçber bûn, êdî dewlet wê bi kêfa dilê xwe penaber û civakên ku li derveyî welat re hatine li ciyê wan bi cîh bike. Tewî teror, hovitî, bê exlaqî û bê hurmetiya ku li hember gelê Kurd, jin û zarok, keç û xortên Kurd, mal û axa Kurdan dikin hê jî dibêjin emê hisabê bipirsin û xwe wek mexdûrê wî şerî û Kurdan wekî terorîst didin nîşan dan. Lê li ber çavan xuya ye ku ewa gelê Kurde divê hisaba kiryarên wan yên qirêj bipirse û dagîrkeriya wan ji Kurdistanê bavêje heya êdî siya wan jî li Kurdistanê nemîne.

Erdogan hemû regezperestên Tirk di bin konê qesrê de gihandine hev. Dîmenên şerê qirkirinê ên ku di nava kûçe û taxên bajarên Kurdan de derdikevin nîşan didin ku hinek ji kadroyên partiya MHP, BBP û regezperestên din yên Tirk ku di welatên cîran de dijîn, hinek jî endamên rêxistinên cîhadîst ên mîna DAÎŞ, Cebhet ul Nusra û Ahrar u Şamê bi awayê çalak bi artêş û polîsên Tirk re li dijî Kurdan şer dikin. Ji xwe kevne giregirekî DAÎŞ'ê bi devê xwe gotibû ku ji van rêxistinan 700 kes beşdarî şerê li Bakurê Kurdistanê bûne. Partiyên opozisyonê her çi qas bi eşkere hevkariya Erdogan nekiribin jî, lê di hilbijartinên pêşvext e Parlemanê di 7ê hezîranê de xuya kir ku di kirasê "mixalefetek neteweyî" de desthilat kê dibe bila bibe, piraniya aliyên siyasiye Tirk li hember Kurdan yekdeng in. Ew qaşo muxalifeta "neteweyî" di hemû deman de û li her çar parçê Kurdistanê her tim hatiye hawar a dîktatoran.

Erdogan-AKP di sala 2001 de dema hate ser textê desthilatdariyê û xwe wekî hawar a demokrasiyê bi nav kir, wisa nîşan da ku li dijî deselata mutleq ya artêşa Tirk û polîtîkaya wan ya darbeya 12ê Îlonê ye, alîgrê pêvajoya çareseriya pirsa Kurd e û her wisan xwe li dijî çeteyên wekî JÎTEM'ê yên ku xwe di nav dewletê de veşartine dida nîşan dan. Lê dema ku pilanên wî li gor dilê wî nemeşiyan, rûyê xwe yê rast nîşan da. Di wê çarçoveyê de, şerek xedar li dijî gelê Kurd li Bakûrê Kurdistanê berfirehtir ji deselatdarên beriya xwe da destpê kirin. Gelo Erdogan ji bo kê û li ser navê kê wî şerî dimeşîne? Ne tenê Erdogan- AKP, dîktatorên fars û ereb jî her tim li dijî Kurdan û bi gelemperî li dijî hemû mirovên azadîxwaz şerê tund û xedar dane û didin meşandin. Lê Erdogan, bi fen û xapan hewl dide ku armanca şerê xwe yê qirêj e li hember gelê Kurd berovajî nîşan bide.

Di rastî de Erdogan û ekîba wî ya di nava AKP'ê de tifaq bi Ergenekon û hêzên tarî yên di nava dewletê û dervey dewletê (DAÎŞ) re çêkiriye heya tola pêknehatina pilanên xwe li gelê Kurd bistîne. Bi wê mebestê heta di nava AKPê bi xwe de jî li dijî sazûmankarên partiyê yên weke Abdullah Gul, Bulent Arinc û hwd derketin, pêvajoya çareseriya pirsa Kurd dan sekinandin û bi xapandina civakê, karîn pêgeha xwe li cem nijadperestên Tirk qahîm bikin. AKPê şerê li dijî gelê Kurd da dest pê kirin ji ber ku Kurd bûne asteg ji bo gihîştina Erdogan bi xewn û xeyalê wî di qsrê de. Hevdem di gel şerê li dijî Kurdan, ekîba Erdogan dijberên xwe yên di nava partiya xwe de yek bi yek tesfiye kirin, heya gihîşte astekê ku êdî dengên cuda yên civakê nehatin bihîstin an jî hatin bêdeng kirin. Piştî wan kiryaran êdî dîktatorê AKPê hewla sax kirina imperatoriya Osmanî da. Lê rola Erdogan di pêşve birina dîktatorî û paşverotî li Turkiyê û welatên cîran, roj bi roj pitir rûyê wî yê rastîn nîşanî civakê dide. Paradoksên ku Erdogan û AKP tê de dijîn, bi xwe wî û sîstema ku ew dixwaze ava bike ber bi şikestinê ve dibe. Nîşaneyên ku riya serketina Erdogan asteng dikin, li ber çavan in: 1) Erdogan, AKP ji nasnameya xwe ya rewa dûr xist.
2) AKP'ê li ciyê çareserkirina pirsa Kurd, înkar kirina Kurdan xiste rojevê û bi çareser nekirina pirsa Kurd, wê jî ku weke hemû partiyên deshelatê yên beriya xwe pirsa Kurd kiribû wesîleya rantê ji bo bidestxistina dengên Kurdan, û piştgiriya gelê Kurd wenda kir. Erdogan hemû serketinên gelê Kurd di her çar parçên Kurdistanê de li dijî ewlehiya welatê xwe dibîne, lewra di şerê DAÎŞ'ê li dijî gelê Kurd, bi hemû şêweyan hevkariya hovên reşperest dike, heya ku vîna gelê Kurd ya ji bo azadiye bişkêne. Lê berxwedana gernasane ya gelê Kurd li dijî polîtîkayên şerxwaze Erdogan-AKP bû sebeb ku rûpoşa wî bikeve, bi awayekê ku di asta navneteweyî de tu car bi qasî niha Amerîka, Ewrûpa û raya giştî ya cîhanî li Turkiyê bi gazin û aciz nebûne.

Berxwedana Cizîrê û têkoşîna gelê Kurd I her deverên Bakûrê Kurdistanê dubare nîşan da ku Erdoxan ne tenê nekarî kûrdan teslîm bike, belkû îradeya berxwadanê li Kurdistanê hêj xurttir kir. Şerê Kurdan li dijî kevneperestên îslamî (DAÎŞ) niha bi awayek eşkere bi sere Erdogan li dijî gelê Kurd ve hatiye girê dan. Lewma serketina Kurdan li dijî DAÎŞ'ê, wê xîmê dewleta Erdoxan jî weke hemû dewletên pêş wî bilerizîne. Di nava Turkiyê bi xwe de jî, xuya ye ku qedera Erdogan ji ya Kenan Evren, DYP û Çiler ê baştir nebe.

Têbînî: Nawroka vê gotarê boçûna nivîskar e, û Rojnameya Agirî di hember de berpirsyar nîne, û belavkirina vê mijarê dikeve çarçoveya azadiya ramanê de.



# Pêşewa Qazî Mihemed jiyana xwe gorî ax û gelê xwe kir



**Azad Kurdî**



Roja 10'ê Xakelêwe (30'ê Adara 1947) ku dike roja îdamkirina Pêşewa Qazî Mihemed û hevalên wî ye, ev bûyer ji aliyê PDKI ku Pêşewa yekemîn rêberê wê bû, weke Roja Şehîdên Kurdistanê hatiye diyarîkirin. estnîşankirina roja şehîdkirina wî rêberê zana kêmtirîn emegnasî bû bo xebat û hewildanên pêwşewa bo azadî û serxwebûna Kurdistanê.

Rast e temenê Komara Kurdistanê 11 mehan dom kir, lê di van 11 mehan de bi rêberî û pêşengiya Pêşewayê nemir, di kiryar de hikûmeteke demokratîk bi vê wateyê ku tê de gelê kurd biryarder û rêverberiya xwe dikir. Ji aliyê din netewî ku navê Komara Kurdistanê hilbijartibûn ku xewna sedan salî ya kurdan bû û herwiha kurdên hemû beşên Kurdistanê û bi taybet Barzaniyan berçav bû. Xebat û bernameyên Komarê di warên rêxistin, çekdarî, siyasî, civakî, aborî û çandî de bi qasê xizmetên hikûmeteke 10 salan bû. Ji ber ku hem rêveberên yekemîn komara kurdan û hem hemû civatên xelkê, hikûmeta kurdî bi ya xwe dizanîn û bi dil û can xizmeta wê dikirin. Lê taybetmendiyên Pêşewa Qazî Mihemed bandoreke mezin ser hemû kar û xebatên komarê hebû.

Gellek lêkolîn û pirtûk li ser 11 meh temenê desthilatdariya Komara demokratîk a Kurdistanê hatine nivîsin û belavkirin. Dijminên kurdan li herêmê her yekê li gor berjewendiyên xwe dîroka komara kurdan berevaj kirine û berevajî rastiyan ev bûyera giring a dîroka siyasî ya Kurdistanê nivîsandine. Hinek lêkolînvanên kurd jî xwe radestkirina Pêşewa Qazî Mihemed bi artêhsa Pehlewî ya Îranêweke pêngaveke tirsonk û bê wire binav dikin. Lê rastî sedî sed berevajî vê yekê ye, Pêşewayê mezin rêberekî gelî û gelhez bû. Pêşewa baş ev yek zanîbû ku ger bihelê û ji Mehabada paytexta komarê dûr bikeve, dê Mehabad rastî çarenûseke xerabtir ji bajarê Tewrêza cîran a Hikûmeta Netewî ya Azerbaycanpe bê ku tê de Cefer Pîşewerî ligel hinek rayedarên vê hikûmetê xwe rizgar kirin û çûn bo Soviyetê ! Pêşewa çû pêşwaziya mirinê, lê mirineke bi serbilindane, da ku bajarên kurdan nebin gola xwînê û aliyên artêhsa hov ya Îranê û dijmin bi hêceta helatina wî kerb û nefreta xwe serê xelkê kurd birijînin.

Pêvajoya dadgehîkirina Pêşewa û wesiyetnameya wî vê yekê bi tevahî bo nifşên piştî Pêşewa Qazî selimandin. Biryar û karê herî hêsan û rihet bo Pêşewa çûn bo Soviyetyê bû, lê wî ev biryar neda û berevajî vê, pişta xelkê xwe berneda û di nav gelê xwe de ma û bi rûmet û serbilindî heta dawî çirkeya jiyana xwe berevanî ji mafê dewletbûna kurdan û avakirina Komara Kurdistanê kir. Ji vê yekê re dibêjin, gelhezî, wêrekî, netirsî, wefadarbûn û rêberbûn. Ji ber van sedeman jî bû ku PDKI di biryareke dîrokî de roja şehîdkirina Pêşewa Qazî Mihemed û hevalên wî, bi Roja Şehîdên Kurdistanê diyarî kir.

**Hemû kar û kiryarên Pêşewa di 11 meh deshilatdariya Komara Kurdistanê û herwiha biryara wî ya mayîna ligel xelkê xwe û giringtir ji vê yekê jî pêvajoya dadgehîkirina wî heta birina Pêşewayê zana bo ser dara îdamê, waneyên mezin in bo me nifşên piştî Pêşewa Qazî Mihemed**



Hemû kar û kiryarên Pêşewa di 11 meh dethilatdariya Komara Kurdistanê û herwiha biryara wî ya mayîna ligel xelkê xwe û giringtir ji vê yekê jî pêvajoya dadgehîkirina wî heta birina Pêşewayê zana bo ser dara îdamê, waneyên mezin in bo me nifşên piştî Pêşewa Qazî Mihemed. Felsefeyeke kûr aşehîd ev e ku jiyan û canê xwe weke sermaya herî buhagiran a jiyana xwe gorî azadî û axa welatê xwe bike. Pêşewa Qazî nimûneya herî mezin û berçav a şehîdên Kurdistanê ye ku jiyana xwe gorî ax û gelê xwe kir. Peyamek ku heta roja bicî hatina wan hêviyên Pêşewa, nabe nifşên piştî Pêşewa Qazî Mihemed ji bîr bikin û dibe hergav lê xwedî derkevin û rûmetê pê bikin.





## Nerîna Lîderan



Kazim Sidîqî:

“Tehrîm ji bo dijmin bûye çekeke bibandor, û dixwazin ku bi tehrîman welatê me felec bikin”.



Wîtalî Çorkîn: **“Tirkiyê çek û teqemeniyan ji DAÎŞ’ê re dişîne”.**



Şêx Xalid bin Ehmed Alê Xelîfe: **“Îran dibe dev ji destêwerdana di nava karûbarên welatên herêmê de berde”.**



Joseph Dunford: **“Rûsiye gefa herî mezin ya dirêjheyam li ser Amerîkayê ye”.**

## Tehrîmên 30 rojan, baskên Hizbullahê şikandine

**Ji roja 2’ê Adarê ve ku biryarnameya Şêvra Alîkariya Kendavê Hizbullah wekî girûpeke terorîstî da nasandin, baskên Hizbullaha Lubnanê derbên giran xwarine.**



Ew tehrîma Şêvra Alîkariya Kendavê li ser alîgirên Hizbullahê, û li ser sponserên wan, bû sedema vê ku gellek ji wan neçar bimînin ku welatên endam di vê Şêvra Alîkariya Kendavê de bi cih bihêlin. Li gora zanyariyan 360 hezar Lubnaniyên ku di bazarên welatên kendavê de kar dikirin, ku her sal nêzî 4 milyardDolarî dişandin Lubnanê.

Ew kiryara Şêvra Alîkariya Kendavê di rastî de praktîzekirina yekemîn biryarnameya Menamê ya Novambera sala 2013’an de bû. Di vê biryarnamê

de Şêvra Alîkariya Kendavê biryar da ku li dijî Hizbullahê û berjewendiyên wan tevbigere. Di daxuyaniya Şêvra Alîkariya Kendavê de hatiye: “Hizbullaha Lubnanê destêwerdanê di nav karûbarên welatên Şêvra Alîkariya Kendavê de dike û bi merema kar û kiryarên terorîstî, qaçaxa çek û teqemeniyan, pêkanîna fitnê, û handana xelkê wan welatan bona tundûtîjiyê, û binpêkirina yasayên wan welatan û jinavbirina ewlehiya welatên kendavê ye”.
21’ê Adara 2016’ê de jî Koveytê 14 kes bi taybetî 11 Lubnanî û 4 Îraqî piştî ku hate selimandin ku girêdayî bi Hizbullahê ne, ji welatê xwe derxist. Koveytê jî tîmeke taybet ya girêdayî bi Wezareta karûbarên hevwelatîbûn û nîştecihbûnê

pêk anî, ku bû berpirsyarê şopandina biryarnameyên îdareya ewlehiya welat, û hevahengî bona derkirna kesên gumanbar ji vî welatî.

Di meha Adara sala 2015’an de Îmaratê 70 Lubnanî bi bêy navbirina ji wan, ji xaka xwe derkir, û tenê 48 demjimêr dem da wan ku wir bi cih bihêlin. Di sala 2009’an de jî nêzî 25 Lubnanî derxistibûn.

li 17’ê heyva Adara 2016’an de jî, dadgeha ewlekariyê ya Îmaratên hevgirtî ên Erebî, dadgehîkirina 7 kesan bi taybetî du Îmaratiyan, bi tometa pêkanîna girûpên girêdayî bi Hizbullahê dest pê kirin. Di roja 14’ê Adara sala 2016’an de bû ku Wezareta

Navxwe ya behrînê ragehand ku wê wan nLubnaniyên ku alîgiriya Hizbullahê dikin, ji welatê xwe derxîne. Derheq dorpêça li ser torên ragehandinê ên Hizbullahê jî, wezîrên karûbarên ragehandinê ên welatên kendavê ragehandin ku her cure alîkariyek digel wan ragehandinan qedexe ye û aliyên ku alîkariyê bi wan re bikin, wê bêne cezakirin.

Hêjayî base ye ku berî vê yekê jî di meha Desamberê de weşana “Elmenar” û “Elmeyadîn” ji mahwareya “Erebsat”ê hatin rakirin.

## Xwîna sûriyan 7 milyard Dolar qazanc gehande Rûsiyê

**Piştgiriya Rûsiyê ji Beşar Esed gellek berjewendiya wê ya aborî bo Rûsiyê hebûye.**

Li gora nûçegihaniyan, Rûsiyê bi riya êrîşên esmanî li Sûriyê de, 7 milyard Dolar qaqzanc gehandiye Rûsiyê. Li gora nivîseke rojnameya Gardiyen, şandina çek û teqemeniyên Rûsiyê, bû Sûriyê, di sala 2015’ê de gihîşte 15 milyard Dolarî.
Rojnameya Rûsî ya bi navê “Kamir Sint” jî di raporeke xwe de nivîsand ku êrîşa leşkerî ya Rûsiyê li dijî Sûriyê gellek qazancên wê yên aborî dikare hebin, û dikare bibe sedema lihevkirina li ser kirîn û firotina çekên Rûsî bi qasî 6-7 milyard Dolarî.

Li gora nivîsandina vê rojnameya Rûsî ku me amaje pê kir, Elcezayir, Endonezî, Viyetnam û Pakistan ji wna welatan in, ku daxwazkarê kirîna balafirên şerî ên “Soxo” ne, ku pêştir ji Çîn û Amerîkayê balafir dikirîn.
Ji aliyekî din ve Potîn ragehandiye ku



êrîşa leşkerî ya wan li Sûriyê de, heya nîva heyva Mars a 2016’an zêdetir ji nîv milyard Dolar xerc jib o welatê wan hebûye. Lê şirovekar dibêjin ku 2-3 hemberî vê hindê xerc li ser Rûsiyê hebûye.

Avêtina mûşekan ji behra Xezerê ber bi aliyê Sûriyê ku navbera wê 1000 mayl dibe, bû sedema vê ku Rûsiye bikeve nava wan welatên bihêz de ku ew şiyana wan heye. Di vî şerî de herwisa Rûsiyê hêza sekûya mûşekî ya nû ya bi navê “S 300” û balafirên şer ên Soxo 35 nîşan dan.





**Beşdariya berbiçav ya jinên xebatkar ên di nava refên PDKÎ de, mil bi milê mêran di rêûresma rêzgirtina ji şehîdên Kurdistanê de**

















## Teqîna mayînê di nîveka bajarê Mehabadê de bû sedema birîndarbûna kedkarekî

**Kedkarekî Kurd li bajarê Mehabadê de, bi sedema teqîna mayînê bi tundî birîndar bû.**

Li gora nûçeya gihêştî bi Ajansa Nûçegihaniya Kurdpa, yek ji kedkarên şaredariya Mehabadê êvariya roja 7'ê Xakelêweyê (26'ê Adarê) di encama teqîna mayînê de piyekî wî birîndar bû.

Teqîna mayînê di dema paqijkirina şeqama sahilî ya vî bajarî de rû daye.

Nasnameya vî hevwelatiyê Kurd heya niha nehatiye eşkerekirin, lê nûçegihaniya hikûmetî a "ÎRNA"yê derheq vê teqînê ragehand: "Ew mayîn a serdema şerê hîran û Îraqê bûye".

Birîndarê vê teqînê di nexweşxaneyê de hatiye ragirtin, û polîs jî care zanyariyan belav nake.

Teqîna mayînê di nav bajarê Mehabadê de di demekê de ye, ku navbera bajar heya sersînor zêdetir ji 150 km ye.

Pêştir û di destpêka Rêbendana sala borî de, cotkarekî Kurd xelkê gundê "Girde reş" a ser bi Mehabadê du mayînên binaxkirî di nav kêlgeheke xwe de dîtibû.



Nawenda serjimêriyan a Ajansa Kurdpa heyamekê berî niha ragehandibû ku sala borî 36 hevwelatiyên bi sedema teqîna mayînê û alavên bi cih mayî ên şerê Îran û Îraqê bûne qurbanî, ku 12 kes ji wan demildets can xwe ji dest dan.

## Bi sedema girtina wêneyeke sêlfî keçek xendiqî

**Mêdiya Ehmedpûr" keçka Kurd a xelkê bajarê Serdeştê di dema girtina wêneya sêlfî dikeve nava rûbarê Zapê de û di encamê de jî jiyana xwe ji dest dide.**

Li gor raporên belavbûyî, hemwelatiyeke Kurd a temen 12 salî bi navê "Mêdiya Ehmedîpûr" xelkê gundê "Zile" a ser bi bajarê Serdeştê, di dema giritna wêneya sêlfî dikeva nava ava Zapê û jiyana xwe ji dest dide.

Xatû Mêdiya roja Înê digel malbata xwe çûbû seyranê, û tûşî vê bûeyrê bûye.
Piştî vê bûyerê navenda Hewarhatinê a pîzîşkî ji bo çareseriya pîzîşkî diçe cihê ku bûyer lê qewimiye, û lê belê hewlên wan bê encam man.

Termê navbirî ji bo lêkolînên pîzîşkî ji bo nexweşxaneya bajarê Serdeştê, veguhistine.

Rûbarê Zapê yek ji wan rûbaran e ku di hemû demên salê de, pirr av e, û serkaniyên wê ji çiyayên Zagrosê û parêzgeha Urmiyê rêz dibin.



## Etlesa 701 girtiyên Kurd hate belavkirin

**Girtiyên siyasî û medenî ên Îranê di dabeşkariyeke neteweyî de hatine nasandin.**

Li gora nûçeyên ku hatine belavkirin, zanyarî li ser 852 girtiyên siyasî ên Îranê ku di 150 girtîgehan de hatine ragirtin, bi hewla rêkxiraweke ne hikûmetî li etleseke dîcîtalî de belav kir.

Di vê etlesê de girûpa yekgirtin bo Îranê, girtiyên siyasî bi heft neteweyên akinciyên Îranê parve kirine, ku ji 852 girtiyan pêk tê.
Derheq bi girtiyên siyasî ên Kurd navê 339 kesan hatiye ku ji bilî wêneyên wan girtiyan, zanyarî li ser çalakiyên van kesan û kurte jiyanname, û cihên ragirtina wan û tometên wan hatiye belavkirin.

Herwisa di beşa girtiyên Kurd de, navê 184 çalakên mesebî, 43 çalakên medenî, 78 çalakên mafên mirovan û zêdetir ji 30 rojnamevan û çalakên kedkarî hatiye.

Malpera vê rêkxirawê ku di Amerîkayê de ye, nivîsandiye ku: "zanyarî li ser 2 hezar kes ji van girtiyan ku di vê etlesê de hatiye, wekî projektorekê li ser kar û kiryarên dezgeha Dadweriya Îranê hatiye amadekirin.

Dema ku dadgehek, azadiya hevwelatiyekî bi tawana mifahwergirtina ji mafên wê zewt dike, ew kart ê tomarkirin û hemû cîhanî jî vê yekê dibîne.

Her div ê etlesê de zanyarî li ser 150 girtîgehên Îranê û 216 dadwerên rejîma Îranê hatiye beêavkirin.

Pêştir jî nawenda belgeyên mafên mirovan a Îranê, serjimêriya 820 çalakên siyasî û medenî û bawermenidyê (eqîdetî), di girtîgehên bajarên Îranê de belav kiribû.

Di vê raporê de navê 290



hevwelatiyên Kurd ku di girtîgehên Îranê de bi tawana çalakiya siyasî û medenî hatibûn destbiserkirin, û hukmê girtina wan hebû, hatibû cihdan.





## Hunermenda îsraîlî: Ez bi ala Kurdistanê serbilind im!

**Hunermenda welatiya Îsraîlê Hadassa Yeshurun got, ew bi alaya Kurdistanê û cil û bergên kurdî serbilind e.**



Hunermenda kurda cihû Hadassa Yeshurun ji Rûdawê re diyar kir, ew dixwaze serdana Kurdistanê bike û li tevahiya bajarên Kurdan bigere.

Hadassa Yeshurun li çend bajarên Îsraîlê bi cil û bergên xwe yên kurdî beşdarî pîrozbahiyên cejna Newroza îsal bû.

Yeshurun wiha got: “Kurd, dostên xelkê îsraîlî ne. Ez bi alaya Kurdistanê û cil û bergên kurdî serbilind im.”

Hunermenda cihû Hadassa Yeshurun stranên kurdî jî dibêje

## Du pirtûkên zanayekî Başûra Kurdistanê li zanîngeheke Tirkiyê têne xwendin

**Li zanîngeha bajarê Çewligê yê Bakurê Kurdistanê du kitêbên zanayê kurd ê Başûrê Kurdistanê Prof. Dr. Mistefa Zelmî wek ders di qonaxa masterê de tên xwendin.**





Di vê barê de berpirsê karên Zelmî, Rêdar Ehmed ji Rûdawê re got ku her du kitêbên bi navên “Prensîbên Destûrî di Qur`ana Pîroz de, Biberhevkirin Ligel Destûrên Mirovî, El Mebadêi El Destûriyye Fî El Qur`an El Kerîm, Muqarene Bî Eldesatîr El Wediiye – Pabendî Di Şerîeta Îslamî û Şerîetên Sivîl ên Erebî de, El Îltîzam Fî El Şerîe El Îslamiyye we El Teşrîat El Medeniyye El Erebiyye” ku ji aliyê Mistefa Zelmî ve hatine nivîsandin, li Zanîngeha Çewligê di beşa Yasaya Îslamî û di qonaxa masterê de tên xwendina.

Mistefa Zelmî kî ye

Prof. Dr. Mistefa Zelmî, sala 1924 li gundê Zelmî yê Silêmaniyê ji dayîk bûye. Sala 1934 çûye medreseya ayînî û zanistên mîna nehw, serf, munazere, mentiq, belaxe, usûlên dîn, usûlên fiqhê, felsefe, matematîk û feleknasiyê ji mamostayên iraqî û îranî fêr bûye. Sala 1946 bawernameya alimtiyê di warê zanistên îslamî de bi dest aniye. Sala 1965 li Zanîngeha Bexdayê, bawernameya hiqûqê qezenc kiriye.

Sala 1968, li Zanîngeha Bexdayê pileya masterê di şerîeta îslamî de bi dest aniye. Sala 1971 di warê fiqhê de pileya master qezenc kiriye, ew pileya wî bi mastera Zanîngeha Ezherê ya Misrê re yek e. Sala 1973 li Zanîngeha Ezherê ya Misrê, pileya masterê di warê hiqûqê de wergirtiye. Sala 1975 li Zanîngeha Bexdayê, doktoraya hiqûqê standiye.

Prof. Dr. Zelmî zêdetirî 50 pitrûk nivîsiye, zêdetirî 40 vekolînên zanistî di warên hiqûq, felsefe û fiqhê de kiriye. Tevlî gelek kongre û civînên zanistanî bûye li nav û derveyî Iraqê. Niha jî berpirsê Encumena Zanistî ya Forma Hizra Îslamî ya Kurdistanê ye.

## Gotinên Navdaran



A: FIRAT CEWERÎ

Parsek şerma xwe di kîsikê xwe de digerînin.
**Baraccio**

Mirov ji bo dîn dinivîsîne, şer dike, dimire; lê mirov nizane ji bo dîn bijî.
**Colton**

Li min xe, lê li min guhdarî bike!
**Themistokles**

Ger dîplomatek bibêje,”erê” hûn mana “belkî” jê derxin; ger bibêje,”belkî” hûn mana”na” jê derxin... Lê ku bibêje,”na” wê çaxê ew ne tu dîplomat e.
**Anonim**

Xweza di çêbûneke matematîkî de ye.
**Galilei**

Xweza, pirtûkeke ku ji aliyê Xwedê ve hatiye nivîsandin.
**Marvey**

Xweza bêî mirov jî dikane bijî, lê mirov nikane bêî xwezayê bijî
Rehruch Disraeli

Wext bi qîmet e, lê rastî bi qîmettir e.
**Wandell Phillips**

Rastî roja ebedî ye, çawan be wê hilê. Derew dimire, rastî namir e.
**Mary Baker Eddy**

Mîna hûn ji xwe re hevalekî dineqînin, nivîskarê xwe jî wilo bineqînin.
**Roscommon**

| JI ALIYÊ BINYADÎ VE MALBATÊN ZIMANAN | | | | | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| Hind-Ewropa | | | | | Hamî-Samî | Çînî-Tibet | Bantû | Ûral-Altay | |
| Zimanên Asyayî | | Zimanên Ewropî | | | Erebî<br>Îbranî<br>Hebeşî<br>Suryanî | Çînî<br>Tibetî | Zimanên Afrîkî | Zimanên Ûralî | Zimanên Altayî |
| Zimanên Hînd-Îranî | | Zimanên Latînî | Zimanên Germenî | Zimanên Slavî | | | | Macarî<br>Finî<br>estonî | Tirkî<br>Moxolî<br>Tunguzî<br>Japonî<br>Koreyî |
| Hîndî | Îranî | Îtali<br>Îspanyolî<br>Romenî<br>Portekîzî<br>Fransî | Almanî<br>Îngilizî<br>Holendî | Rusî<br>Bulgarî<br>Sirbî<br>Çekî | | | | | |
| Hîndî<br>Ûrdî | Farsî<br>Kurdî<br>Belûcî<br>Tacikî | | | | | | | | |

| | | | |
|---|---|---|---|
| Aa<br><br>agir | Dd<br><br>dest | Gg<br><br>gore | Jj<br><br>jûjî |
| Bb<br><br>beq | Ee<br><br>elok | Hh<br><br>hesp | Kk<br><br>ker |
| Cc<br><br>cewrik | Êê<br><br>êzing | Ii<br><br>incas | Ll<br><br>lepik |
| Çç<br><br>çav | Ff<br><br>fîl | Îî<br><br>îsot | Mm<br><br>masî |
| Nn<br><br>nan | Rr<br><br>rovî | Uu<br><br>utî | Xx<br><br>xiyar |
| Oo<br><br>ordek | Ss<br><br>sêv | Ûû<br><br>ûr | Yy<br><br>yek |
| Pp<br><br>por | Şş<br><br>şêr | Vv<br><br>vizik | Zz<br><br>zebeş |
| Qq<br><br>qaz | Tt<br><br>tirî | Ww<br><br>werîs | |

# Tiştonek



**A: Mahir Berwarî**

**1- Ne li e rd e, ne li esman e, hêlîna begrewan e.**
**- Gayê kejo, li hewa dajo.**
**- Agir û asin, kelê mezin, vêkra dibezin.**

**2-Tiştekî min heye tiştanî, ne pê heye ne panî, her roj diçe kanî. (* pitir bo mesîn, cer ... ji dibe)**

**3- Qasî kewekî, digerîne barê kerekî.**
**- Lat û lat, min pê tev da evqas welat.**
**- Tiştek heye ku girêdidim diçe, vedikim naçe.**
**- Ez siwar bûm ne zîn e. girêdidim bi rêve diçe, vedikim disekine.**
**- Min hulek havête dolekê, dol dirya hul ne. .**

**4- Ew di hundirê malê de, mal di hundirê wê de.**
**- Şewqa wê da newqa min .**
**- Bi şevê nabiriqe, bi rojê dibiriqe.**

**5-Pisê pisê nêrgizê, liser avê dihezê, ne gur dixwe ne dizê.**

**6- Le hawîn û le zistan, lê deden be kolemistan. (* ji Zagroz tv)**
**- Heru deyka te komeka hêkên qaza dikit.**

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja!**
**Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**



